Bidestveanîna Mafên Netewî
Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal De

Hejmar: 176
4'ê Şibat 2012
Buha: 150 Tûmen

# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî

## PDKÎ di civîneke taybet bi Kurdên Turkiyê de beşdarî kir

Roja 31.01.2012'an, heyetek PDKÎ di civînek taybet bi Kurdên Turkiyê di Perlemana Birîtanyayê de beşdarî kir.
"Hîwîl Wîlîmas" Endamê Perlemana Birîtanyayê û "Selaheddîn Demirtaş" Serokê BDP mêvanên sereke ên vê civînê bûn.
Di vê civînê de her yek ji "Hîwîl Wîliyams", "Selaheddîn Demirtaş" û "Nezmî Gul" gotar pêşkêş kirin. Basê sereke yê civîna han li ser rewşa Kurdistana Turkiyê û binpêkirina mafên netewa Kurd di vî welatî de bû.

***Birêz Mistefa Hicrî:***
***"Aliyê din ya ezmûn, yan jî mîrata komarê ew e ku arasteyê alîgirên yek netewe, yek ziman û yek dîrokî dike. Komar bi alîgirên eqliyeta pawanxwaziyê dibêje ku ew xeyala ku hûn hêvî dikin ku pêngavan jêre hilgrin, nikare weha dom hebe û bigîje encamê".*** R: 2 û 3

**Berxwedan li Sûriyê**
her dirêjî heye
R: 7

Şehab Xalidî

**Cennetî bêt? Mmmm, ne ew**
kurmî ye, bila nehêt
Heserî bêt? !!!!!! ka bila bêt R: 4

Ceifer Mubeşirniya

**Xwetazîkirin çima?!**
R: 8

Sadiq Vehdanî

**Mistefa Hicrî:**

# Derbasbûn ji eqliyeta pawanxwaz û demokratbûn, peyama Komarê bû

Bi boneya 2'ê Rêbendanê 66'mîn salvegera avakirina Komara Kurdistanê, rê û resmek li binkeya Deftera Siyasî a PDK Îranê, bi beşdariya birêz "Mistefa Hicrî" Sekreterê Giştî ê PDKÎ, endamên rêberî, kadr û pêşmerge û malbatên wan, û herweha mêvan û nûnerên aliyên din ên Kurdistanî, bi sirûda netewî Ya "Ey Reqîb" û ragirtina xulekek bêdengî bo rêzgirtin ji canê paqij yê şehîdan destpê kir.
Piştre Sekreterê Giştî yê PDK Îranê birêz "Mistefa Hicrî" peyama xwe bi vê boneyê pêşkêş kir, ku deqê vê peyamê li rûpela 2, û 3 de hatiye danîn.
Naweroka vê rê û resmê çend sirud û sitranên curbicur bûn û dawiya rê û resmê jî govenda bi xeml ya Kurdî bû. Ji bilî vê rê û resmê gellek rê û resm jî li kurdistana başûr û li dervey welat bona rêz girtina ji salvegera 2'ê Rêbendanê birêve çûn.

## Sergotar

### Tehrîm û zengila şer

**Selîm Zencîrî**

Rialîteya siyasî û aborî a dijwar û aloza Îranê li dor givaşên navnetewî, nîşan ji destpêkirina qonaxek nû ji berbirûbûna civaka cîhanî bi Rejîma Îranê re ye. Qonaxek ku êdî baykotan haletê sembolîkên xwe qedandine, û sîstema bankî û şademara aborî a Îranê bi nîşane girtine, û karîgeriyên berfireh û tewaw yên wê jî li ser bazar, aborî û jiyana rojane a xelkê Îranê bi başî dixuyin.

Pêvajoyek ku ger weha dom bike, karesatên mezin wê bi dû re bên. Helbet lojîk, mentalîte û mesaca wan givaşan jî eşkere ye, ew jî vegerandina rejîmê bo ser maseya gotûbêjê bi armanaca guherandina riftarên wê, û desthilgirtin ji projeya etomî ye. Projeyek ku desthilatdarên serhişk ên Îranê amade ne ku li hember bidestxistina wê de, her nirxekê bidin, û felaket û rojreşiyek zêdetir bo xelkê bi diyarî bînin ku weke stratejiyek neguher e. Lê eva ku carna taktîkên xwe diguherînin û amadebûna xwe bo gotûbêjan nîşan didin, tenê jiber xapandin, demkuştin û kêmbûna givaşan li ser xwe ye.

Niha xincî barê girane tehrîman, bijardeya leşkerî ku caran tenê wek gef dihate bikaranîn, niha bi hin nîşaneyên nû û bihêz li deverê li rojevê de ye. Vêca çi hevahengiya xurte Rojavayiyan be, û çi jî berhevkariyên nîzamî ên wan bin, formolek ku destê civaka cîhanî û xwaziyarên dixaletên mirovdostane vekirî hiştiye. Anku hikûmetek totalîter û cînayetkar e ku yasa û rêsayên navnetewî li berçav nagre, ji helkevta jiopolotîkî a xwe mifahek xirab distîne, gefê ji aborî û ewlehiya dever û cîhanî dixwe, mafê mirov bi berfirehî pêpes dike, bûye milê biquwete terorîzma navnetewî, destêwerdan li kar û barên welatan de dike, hewla bidestxistina çeka komkuj dide û civaka cîhanî jî dixapîne û ...hwd.

Encamên weha, siyaset û têkderî û riftarên rejîmê, bûye sedem ku weke gef bo ser asayiş û ewlehiya hemû cîhanê bê nasîn, û civaka cîhanî jî li hember de ne tenê xwe mafdar dibîne, belkî erkê yasayî û exlaqî ê xwe jî ferz dibîne ku bi her awa û alavek mumkin li dijî rejîmê raweste. Vêca çi baykotên tund û seqetkerên aborî bin, û çi jî êrîşa leşkerî be ku tenê rejîm li hember encamên vê êrîşê de berpirsiyar e.

# Rêzdar Mistefa Hicrî, Sekreterê PDKÎ derheq 66'mîn salvegera avakirina Komara Kurdistanê peyameke bi vî awayî pêşkêş kir:



**Hemwelatiyên hêja!**

Ez îznê dixwazim ku di vê rojê de, wate li 2'ê Rêbendanê salvegera avakirina komara Kurdistanê de berî hemiyan silavan bişînim bo riha pak ya tewaya wan şehîdên serfiraz ku li riya Komarê de canê xwe fîda kirin, û li serveyî hemiyan pêşewayê xweştivê ê gel Qazî Mihemed serkomarê vê komara sava û nemir mele Mistefayê Barzanî piştevanê emegdarê komarê û silavên bê dawî bo gelê Kurd bitaybet endam û alîgirên PDKÎ ku di destpêkê de heya niha alahilgirê rastîn ê komarê bûne, û komar û peyama wê rûnahîkerê xebata wan ya serfirazane bûye.

Di wan rojan de li vira û wir, û her cihekê de derfetek pêk hatibe, hemwelatiyên xebatkar bi pêkanîna kom û civînan hesta emegdariya xwe bi Komara Kurdistanê re eşkere kirine û yad û bîra wê behaya netewî ya Kurd bilind nirxandine, li welatên rojawa zincîreyek rê û resmên bi vê hincetê ji aliyê endam û alîgirên PDKÎ ve bi beşdariya Kurdên hemû beşan pêk hat.

Li herêma Kurdistanê de ku bi xweşî ve li destê dagîrkeran rizgar bûye, evsal gellek berçavtir li salên borî ew merasim pêk hatine û li her derê beşdariya berbiçav ya kurdên Kurdistana Îraqê û kurdên awar ên Kurdistana Îranê û beşên din ên akincî li herêma Kurdistanê de birêve çûn û niha jî wan rê û resman her dom hene.

Di birêveçûna bi awayê berfireh ya wan merasiman li herêma Kurdistanê de li jêr bandorek pozetîv ya YLDKÎ û bi alîkariya komek ji rêkxirawên ciwanên herêma Kurdistanê, ciyê dilxweşiyê ye, û li hemen dem de nîşaneya hişyarî û giringîpêdana lawên xweştivî ên welatê me ye bi dîroka neteweya maf jêxwarî.

Di Kurdistana Îranê de jî wek beşên din ên Îranê û herweha zêdetir jî, zext û givaştinên dîktatorî yek ji sîstemên herî paşvemayî ê dîktatoriyê derbas dike.

Ciwanên biwêr û pêgehiştî li jêr fezayê zext û hereşeyan û givaştina polîsî û ewlehiya dasepaw ji aliyê hêzên rejîma Îranê ve bi bilavkirina trakt û diruşm û şêwên din ên guncaw hesta niştimanperwerî û rêzdariya xwe ji bo komarê û şehîdên wê eşkere kirine.

Em bi çavê rêz û sipasê ve li wan hemû tekoşînan dinêrin, zindî ragirtina vê boneya netewî li vê dîtingehê ve jî ji me re cihê şanaziyê ye ku heke dijminên neteweya me ji her aliyekê ve bi dirêjahiya nêzîk bi sedsalekê tev pîlanan bi dijî neteweya me ceribandine, û li vê riyê de sermayeyek zaf terxan kirine û bi hezaran kesî ji xelkê azadîxwaze welatê me bi tawana Kurdbûnê îdam kirine da ku ziman, kultur û dîrok û tev buhayên me ên netewî ji bîra me bibin, û bi giştî me li nav kultura neteweyî ya zordariya xwe de bimehînin, lê gelê kurd serî kurnuj nekiriye û cesurane amade bûye ku her nirxekê bide da ku her Kurd bimîne û her Kurd jî maye, ewne û gellek ên din nîşaneya vê rastiyê ne ku emê her bimînin û serkevtin jî her ya me ye.

**Hemwelatiyê hêja, hevalên riya rohn ya Komarê!**

Îro jî em li vir li hev civiyane da ku bi hevre yad û bîranîna komarê bilind ragirin, komarerk ku piştî derbasbûna 66 salan ji jiyana kurt, hêşta jî wek çirayekê riya rast û hêviya pêşerojek geş ji bo me û nivşa paşerojê ya me ronî dike. Herçend derbarê komarê û taybetmendiyên wê pirr hatiye gotin û gelek hatiye nivîsandin, lê destkevtên komarê û buhayên wê ew qas mezin û zaf in ku hêşta jî hewcehî bi vê hindê heye ku bas jê bê kirin, meznahiyek ku nivşên îro yên ku komar bi çavên xwe nedîtine, niha jî her bi şanazî ve bas jê dikin û têhniyê cardin anîna hêviyên komarê ne.

Komara Kurdistanê derxerê xeyala takê Kurd bûye, takek ku dixwaze bêje min jî wek ên din keramet heye ku dixwazim biparêzim, takek ku kiyanek heye û daxwaza serweriya wê kiyanê dike, takek ku pabendê exlaq û buhayên însanî ye û hêviya veqetiyana mirovan bi navê îdeolojî û mîtafîzîk ve nake, berevajî daxwaza bihevre jiyanê û aştî û demokrasiyê dike. Lewra jî ez dixwazim ku li vê duyê Rêbendanê de vegerme ser beşek ji peyamên berz ên hizrî ên komara Kurdistanê ku kêmtir bas û lêkolîn ser hatine kirin:

Komara Kurdistanê hilgirê komeke wateyan bû ku cuda ji civaka Kurdî rû li ên din jî bû, çi yên ku bi me re dijîn û çi yên ku li derveyî me dijîn, peyama pîroz ya komarê ji bo yên din ew bû ku xwe derbas bikin ji eqliyeta pawanxwazî û bibne demokrat, rizgar bin ji paşvemayînê û bibne îroyî, kerameta mirovî gelek zêdetir ji tev buhayên sazkirî ye, lewra mirov dike pîvaneya rewayîya xwe, dibêje ên din derbas bin ji tev wan rewayiyên ku ji bilî mirov tiştên din dikne bingeh û pîver, û li şer'yeta xelkê binêrin.

Serbarê tev wan aliyan xalek ku divêt îro bas lê bê kirin, vegeryana bo aliyê komarê bixwe ye bo vê ku em ji xwe bipirsin ku deskevt yan mîratên komarê çi ne? Ew mîrat çi ne ku îro divêt awêne û xwedîka riya rizgarî û azadiya neteweya me bin, ew mîrat li kîjan beş û cihan de bandor li ser takê Kurd kirine, gelo ew mîrat xwediyê wan peyaman in ku bêjne me em îro çi bikin, gelo ew mîrat ew buha têde hene ku sînorekê ji me re diyarî bikin û bêjne me ku kîjan berjewendiya netewî ye, û kîjan nine.

Ewne bi giştî ji ezmûn û mîratên komarê dipirsin da ku ji tirîbona partiya Komarê ve dîsan peyama xwe arasteyê komarê bikin. Bi boçûna min çend peyamên serekî ji çarçiraya Mehabadê ve ber bi Sine, Urmiye, Kirmanşah, Îlam û Tehran û derveyî Îranê tê arastekirin, peyamek ji bo Kurdistanê ku ji Makû û Selmasê ve dest pê dike heta ku digîje Dalahû, û çiya û daristanên Îlamê. Peyamek ku rû li nasyonalîzma pawanxwaz û netewetewer e ku deshilata Tehranê berhema vê bûye û berhema wê ye jî.

Yek ji wan mîratan peyama komarê ye ji bo neteweya Kurd. Ew peyama dibêje me rizgarî û azadî li domandina riya me de ye, dibêje deshilata nawendî werin ku em bihevra bijîn. Bihevre jiyan felsefeya jiyanê ye. Mirov bi bihevrejiyanê mezin dibe.

**xelkê azadîxwaze Kurdistanê!**

Dema ku dengê komarê li çarçiraya Mehabadê ve rû li tewaya Kurdistanê kir gote me ku divêt em rizgar bin, rizgariyek ku bêhna derbasbûna ji hêmayên dagîrker bide, rizgariyek ku şunasa me ber bi lêwarên aramiyê ve bibe, her ji vî warî de bû ku Komar tenê riya xwe li aramî û asayişê ji bo şunasa me pênase kir, komar û endazyarên wê baş dizanin heya wê demê ku mirov rizgar nebe, nikare kerameta xwe biparêze, lewra manîfista siyasî, civakî, aborî û kulturiya xwe girêdabû bi rizgarbûnê ve, û gote me ku neteweyek ku rizgar nebe, qet nikare parêzvaniyê ji keramet û azadiyên xwe bike.

Avabûna komarê xwe li vê peyamê de dibîne ku em ji bo rizgariya Kurd hatine û dixwazin ku vê neteweyê rizgar bikin, armanc û hêviya me derbaskirina vê neteweyê ye ji vê tirsa ku ji şunasa xwe heye, lewra tirs û şermokbûn ji vê şunasa tepeserkirî divêt bidawî were, û serdema mana li nav mezlumiyetê de jî bidawî were, û em ber bi şanazîkirina bi vê şunasê ve pêngavan dihavêjin, jiber ku li şunasa tepeseriyê de kerameta mirovê Kurd binpê dike, rêberên Komara Kurdistanê jî vê rastiyê dizanin û hewla vê hindê didin ku gelê Kurd ji vê binpêkirinê rizgar bikin.

Ya ku di çarçoveya netewên bindest de me dîtine ew e ku ew jî wek Kurd bo derbazbûna ji bindestiyê berengarî dagîrkeran bûne da ku şunasa xwe ji tirsê biparêzin û ên ku ew yek nekirine, li rûpelên rojgar de wek netewe ji nav hatin birin, em ji ezmûna Komarê ve hîn bûn ku rizgarî pêngava yekemîn e, heke em kerameta xwe wek mirov bi dest nexînin, em nikarin pêşeroja neteweya xwe ku erkê parastina vê şunasê heye, misoger bikin. Her lewra jî yek ji mîratên Komara Kurdistanê ew bû ku ew bîr û hizr li derûna me de zindî kir ku hewlên me ji bona asûdebûnê ji dergûşa rizgariya şûnasa me ve derbas



dibe.

Li demên rûxana komara sava ya me ve heyan niha karwanê şunasa Kurdî bi rêberiya partiya Komarê nesekinî ye boma vê ku bêje me ku nivşên Kurd li her serdemekê de ew mîrata Komarê di destê wan de ye û pêngav bo rizgariya netewî hildigrin da ku wrgehek aram bibînin bona vê ku tu kes nekare êrîşî ser şunasa me bike.

Mîrata duyê ya komara Kurdistanê anîne holêye vê peyamê bû ku heke em ji qonaxa rizgariyê derbas bûn, bi vê wateyê nine ku emê bibne axa û koxayê takên Kurd, belku piştî rizgariyê erkê Kurd û deshilata Kurdî sazkirina vê rewşê ye ku tak bi tewaya taybetmendiyên xwe ve xwedî maf bin, erkê deshilata Kudî tenê sazkirina hevsengî ye bona vê ku bikare berjewendiyên cuda rêk bixe û nehêle ku mafê tak bikeve tirsê de, her di vî warî de bû ku navê deshilata Kurdî kirne Komar. Wate Komar ji aliyekê ve bingeha rewayiya xwe ji cemawer yan xelkê ve werdigre û ji aliyek din ve Komara Kurdistanê ku li ser bingeha şunasa neteweya Kurd xwe sax dike.

Her lewra em dibînin ku li heyamê deshilatdariya Komarê de tu cure êrîşek bo ser azadiyên xelkê nehate kirin, karbidestên komarê nedixwastin ku panahiyên giştî ên takê Kurd kontrol bikin, li vê karê de cuda ji takê Kurd ku xwediyê şûnasa Koamarê bû, şûnasên din jî mafê wan jî wek akinciyeke kiyana Kurdî hatibû parastin, wate mafek hewta hebûn.

Li felsefa komarê de siyaset û maf tenê para mêr nebûn, belkû jin jî wek nîva din ya civakê xwediyê heman mafî bû, û ew yek di demekê de bû ku civatgeha Kurdistanê wê demê li astekê de nebû ku hest ya têgihîştin hebe li çav mafê jin, lê komarê hewlên xwe xistin ger da ku civakê ji mafê jin agadar bike.

Herweha ji me re derdikeve ku têgeha azadiyê li cem komarê çemkek sînordar nebû bi wateya bertengkirina wê li çarçoveya girûp yan şunasek diyarîkirî de, lê ew ezmûna Komarê me hîn dike ku xebata rizgarîxwaziya Kurd tenê xebata rizgariya netewî nine, belku di heman dem de xebateke ji bo azadiya tekên civakê. Lewra ew mîrata komarê heya îro û heya sibê jî yek ji wan mîratên pirr ji şanazî ye ku dibêje me, em dikarin li eniya rizgariya netewî de kom bibin. Lê nayê vê wateyê ku em civakekê berhem bînin ku mefê Kurd ber çav nagire.

Aliyê din ya ezmûn yan mîrata komarê ew e ku arasteyê alîgirê yek netewe, yek ziman û yek dîrokî dike. Komar bi alîgirên eqliyeta pawanxwaziyê dibêje ku ew xeyala ku hûn hêvî dikin ku pêngavan jêre hilgrin nikare weha dom hebe û bigîje encamê, jiber ku hûn bixwe dibînin ku hûn hewil didin ku hêviyên me ji nav bibin, lewra komar û serkirdeyê wê yê zana berevajiyê deshilatdarên Tehranê dengê fire rengî û fire netewî li Îranê de bilind dikin ku hewara pêkvejiyanê dikne diruşm, û çiraya rizgariya Îranê ji pawanxwaziyê hil dikin.

Ya ku aliyê kêm li sedsala borî de ta îro li Îranê de me dîtiye, eva ye ku bi nav û şêwazên cur bi cur hewlên xwe bo kontirolkirina deshilata siyasî berdewam kirine û ji her riyekê ve hewil hatiye dan bona vê ku deshilaa siyasî li nawend û bi awayewk pawanxwazane birêve here.

Demekê ku li jêr navê neteweyî û demekê din bi navê ayîn. Her yek ji wan panahiya lîstikên siyasî ên Îranê dixin bin rikêfe xwe de, û yên din ku li çarçoveya neteweyî a wan de û yan jî ayîna wan de ciyê wan nabe davêjne rexek din, lê dema ku komar dengê xwe bilind dike, vê peyamê arasteyê wan dike ku birêvebirina welat bi vî awayî tenê dîktatorî lê dikeve û em neteweyên jêrdest ên Îranê berevajiyê wan hişik bîr nakin û li cih pênasekirina Îranê wek neteweyekê li ser vê bawerê ne ku çend netewe di Îranê de dijîn û bihevrejiyana wan neteweyan e ku rêrewa siyasî a Îranê diguhere û ber bi demokrasiyê ve dibe, di heman dem de komar bixwe berevajiyê neteweperestan û axûndan kiyanekê saz dike ku tev netewe û ayînzayan mafek beramber li hember takê Kurd de hebe, li demekê de ku karbidestên Îranê hewla paktawkirina netewên din dida, komarê hewla pêkanîna rewşek aram dida ku Kurdistanê bike Kurdistanîbûn û xwe derbas bike li bîra tesk û teng ya netewe perestiyê de.

Li vir de ji mere eşkere dibe ku komara Kurdistanê berevajiyê propagendeya neteweperestên Tehranê ezmûnek bû ku modela herî baş ji bo bihevre jiyanê xiste rû, lewra ew komara mîratên wê tenê taybet bi xelkê Kurd nine, belku dikare mîrata Îraniyan jî be, bi vê mercê ku li derveyî cîhana neteweperestiyê bîr bikin.

Cuda ji mîrata komarê bo Kurdistan û Îranê vê komarê peyamek gellek girin jî arasteyê civatgeha nevnetewî kir, ew jî ew peyame bû ku xeyala kurd li anîn û avakirina komarê bi demokratîzekirina civatgeha navnetewî ye, demekê Îran dikare asayişê bixwe bibîne, ku tev şûnasan bi yek ast û rêjeyî xwedî maf bin, lewra komar gellek bi hişyarî ve deng bilin kir ku ew modela deshilatdarî û paktaw kirin li cîhanê bi taybetî li Rojhilata Navîn de bidawî were, li ber vê ku ew dewlet berî vê ku nûneratiya takên navxweye welatê xwe bikin, nûnerê berjewendiyên teng in, ku cîhanê berev bêqerariyê ve dibe, û bi vî awayî asayiş nikare berhem bê.

Lê mixabin pêşbirkêya zilhêzan li ser berjewendiyan egerek girîng bû li ber vê ku ew qet vê peyamê nebîsin, lê em wek gelê Kurd û PDKÎ qet ser kurnuj nakin û erkê me ye ku niha êdî dengê xwe bilindtir bikin jiber ku li tewaya rabihurî heqaniyeta peyama komarê bo tev cîhanê eşkere bûye.

Niha jî piştî derbazbûna 66 salan bi ser roja 2'ê Rêbendana sala 1324'an de, em wek PDKÎ wek rêvîngên riya Komarê cardin dibêjin ku bîrûbaweriya komarê bîr û baweriya me ye, reftar û siyaseta komarê reftara û siyaseta me ye, tevî vê ku ew mîratên ji komarê bi cih man, tenê milkê PDKÎ ninin, belku milkê tewaya mirovên rizgarîxwaz in.

Lewra jî rûyê axavtina xwe dikme xelkê Kurdistanê û rû dikme neteweya xwe û dibêjim hemû aliyek li civakê çi wek tak û çi wek partî erkê me ye ku manîfista bîrkirina xwe ji van mîratên komarê dûr nexînin heya ku bikarin, rûyê daxwaziyên xwe bikne civaka Kurdî û civatgeha derveyî xwe, bona vê ku hem refên xwe qahîmtir bikin, û hem jî cîhana derve jî bi başî ji me tê bigîje.

Li vê boneya pîroz de, û bi lênêrîn ji wan mîratên komarê em rû dikne hêz û aliyên Îranî û dibêjne wan ku heke hûn daxwazkarê parastina mafê mirovan û demokrasiya di Îranê de ne, heke hûn xwazyarê parastina tewawiyeta xaka Îranê ne, û heke jiyan li jêr sîbera hikumeta neteweperest a paşatiyê û ayînî ya rejîma Îranê de ew bêzar kirine, û xwazyarê jiyana wek mirovê vî serdemî ne, pêwîste ku ji mîratên komarê mifahê bistînin û peyamên wê guhdarî bikin.

Partiya me wek PDKÎ ku yekem mîratgerê wan mîrata ye, li jêr rûnahiya peyamên xwe de li gel we ye bona bihevre jiyana li Îranê de ku ya tev neteweyan be, bi mafê wekhev û bi pênaseya me wek Kurd û Kurdistanî, lê heke her wek borî heke we xeyala deshilatek sitemkara heye, eva riya me riyek din dibe, û hûn jî nagîjne hêviyên xwe.

Di dawiyê de cardin ez pîrozbahiya 66'mîn salvegera avakirina komara kurdistanê li tewaya gelê Kurd û beşdarên merasimê dikim. Bi vê hêviyê ku em tev bihevre bona cardin anîne holêye peyamên komarê tekoşînê bikin û şanaziya avakirina dîsan ya komara kurdistanê bibe para me jî.

**Sekreterê giştî**
**Mistefa Hicrî**
**02.11. 1390**
**22.01.2012**



***Rejîma Îranê ji her demê zêdetir hewceyî bi meclîsek yekdest, yekreng û hevbîr heye, da ku sîstema wan ya dîktator tekûz be.***



# Kurdistan û hilbijartinên meclîsa nehem



**Azad Kurdî**

**Azad_kurdî2004@yahoo.com**

Li nivîsara hejmara berê de, me qala giringiya hilbijartinan di çarçoveya sîstemek demokratîk de kir û herwiha me çawaniya rêveçûna hilbijartinan di sîstema Komara Îslamî ya Îranê de şirove kir. Di vê nivîsarê de emê li ser rojeva hilbijartinên gera nehem a Meclîsa Şêwra Îslamî ya Îranê li Rojhilatê Kurdistanê, bi kurtî jî be bisekinin.

Du mehan berî destpêbûna navnivîsîna berbijarên gera nehem a hilbijartinên Meclîsa Şêwra Îslamî ya Îranê, piraniya rêxistin û partiyên siyasî û sivîl ên Kurd, di daxuyaniyên cuda û hevbeş de, hilbijartinên vê gera Meclîsa Îranê boykot kirin. Hêzên siyasî yên Rojhilatê Kurdistanê hilbijartin di çarçoveya Komara Îslamî û qanûnên wê de ne demokratîk dizanin û berevajî rêbaz û pîvanên demokratîk û demokrasiyê şirove dikin.

Her wek çavdêrên siyasî berî destpêbûna proseya navnivîsîna berbijarên gera nehem a hilbijartinên Meclîsa Îranê pêşbînî dikirin, vê carê hikûmetê piraniya nûnerên rexnegir yên heta ku niha di meclîsa heştem de parlamenter in û herwiha kesên ne girêdayî dewletê ku nû xwe berendam kiribûn, ji beşdarîkirin di prosesa hilbijartinan de bêpar kirin. Konseya Parêzvan (Şêwra Nobedar) ku ji Meleyên tundrew û girêdayî serokê olî yê rejîmê pêk tê, kêrhatîbûna berbijarên hemû hilbijartinan li Îranê kontrol dike û dinirxîne, kesên naskirî, cihê baweriya xelkê û rexnegir nayên qebûlkirin û ji mafê berbijarbînê têr bêparkirin.

Lê vê carê zêdeyî nûnerên Kurd ên bajarên Rojhilatê Kurdistanê ku niha di Meclîsê de ne, ligel gelek kesayetiyên naskirî û cihê baweriya neteweya Kurd ku nû xwe berbijar kiribûn, hatin redkirin. Ev pêngava Konseya Parêzvan a Komara Îslamî ya Îranê bû sedem, ev rêjeya kêm a xelkê ku berê li Kurdistanê di hilbijartinan de beşdarî dikirin, tevlî enî û kampanya boykotê bibin. Ji xwe çendîn sal in, neteweya Kurd li Rojhilatê Kurdistanê ji ber ne demokratîkbûna hilbijartinên ku di sîstema Komara Îsêamî ya Îranê de tên rêvebirin, boykot dikin.

Eniya Yekgirtî ya Kurd ku saziyek qanûnî ya Kurdan e li Îranê, hilbijartin boykot nekirin! Vê carê çend berbijar dan naskirin, lê hemû berendamên vê rêxistinê jî hatin redkirin û nikarin tevlî kampanya hilbijartinan bibin ku biryare di meha Adara 2012'an de rêve biçin.

Herwiha ligel nûner û bernedamên Kurd, nûnerên rexengir û nerazî û kesayetiyên naskirî yên neteweyên din ên Îranê jî nehatine qebûlkirin. Ji laiyekî din jî, reforxwazên nav hikûmeêt jî vê carê hilbijartin boykot kirine.

Rayedarên Komara Îslamî li vê rewşa hestyar ku herêma Rojhilata Navîn tê derbas dibe û di asta navxwe û navneteweyî de ligel kirîzên gelk cidî û xurt rûbirû bûye, ji her demê zêdetir hewceyî bi meclîsek yekdest, yekreng û hevbîr heye, da ku sîstema wan ya dîktator tekûz be û bi tebahî bikemile. Nerazîbûn û xwepêşandanên piştî hilbijartinên Serokkomariyê a 2 sal berî niha, tirs û xofek mezin derbarê egera serhildana neteweyên Îranê di dilê wan de pêk aniye. Loma hemû kesayetiyên rexnegir û nerazî û cihê baweriya xelkê vê carê ji mafê berbijarbûnê bêpar kirin.

Herçiqas çûyîna wan nûneran berê jî nekarîn tu pirsirêkên siyasî, aborî, civakî û kultûrî yên neteweya Kurd û gelên din ên Îranê çareser bike. Lê vê carê ev derfeta gelek biçûk jî ji wan kesayetiyan jî standin.

Tometa ku kesayetiyên Kurd li Rojhilatê Kurdistanê pê re hatine tawanbarkirin û nehatine qebûlkirin, girêdayîbûna wan bi partî û rêxistinên siyasî yên îlegal ên Kurd hatiye destnîşankirin. Sucek ku sedan çalakvanên siyasî û sivîl li Rojhilatê Kurdistanê bi hêsanî bi vê tometê û ... bi cezayên giran ên girtîgehê mehkûm kirine û gelek jî darve kirine û dikin.

Di rewş û atmosferek wiha xurt a ewlekarî de ku li Kurdistanê heye û bi van rêbazên ne demokratîk, nehemîn gera hilbijartinên Meclîsa Şêwra Îslamî ya Îranê ligel pêşwaziyek sar a Kurdsan rûbirû dibe û boykot gelek ji berê berfirehtir dibe.

# Niqurçk

## Meclis bêt? Bila bêt



**Ceifer Mubeşirniya**

c_m_s24@yahoo.com

Meclisa rejîma Îranê ne meclis e, îdareya Kamilbeg e, her kes ji xwe re diaxive. Endameke wê Meclisê got: "Amerîkayê gefên Îranê bi micit girtin û nevêre bi tena serê xwe li Tengeya Hurmiz derbas bibe".

Ez jî nizanim Amerîkayê bo ew gotin bi micit girt, çimku ew gef pêtir şibê henekan bû, yekê digot emê bigrin, yekê digot em nagrin û yê din digot me negotiye emê bigrin..., "Pîlîndarê destê kore" ye, dê têverînin ger giiiirt ewe girt, ger negirt jî dê bêjin (pix pix Obama me henek kir). Dema ji vê yekê jî haydar bûn ku "hirç kafire" henek menekan nizane, Xamneyî dê gefa girtina Tengeya Hurmiz di nava reş û rûtên xwe de bavêje "guhkêşkanê", ka dê ber kî bikeve, ku guhê wî hind bikşînin heya dikin mertal ku pêşiya niqîzeyên Amerîkayê pê bigrin. Wêca di nava bigrin, negrin, dêgirim û nagrim de, ew nûnerê meclisê ket hirza qerebûkirina bazara pere û zêr a Îranê û got: Ger em Tengeya Hurmiz bigrin, nawên balafirhelgirên Amerîkayê xenîmet in, emê wan bidest bixin. "Kero nemre bihare, qîfar şînbûn nizare".

Wêca wî wêneyî binêrin, li hember nawên balafirhilgirên Amerîkayê de, Xamneyî nawek "melahilgir" şandiye Tengeya Hurmiz.



***************

## Cennetî bêt? Mmmm, ne ew kurmî ye, bila nehêt
## Hesenî bêt? !!!!!! ka bila bêt

Salên destpêka bidesthilat gihîştina rejîma Îslamî a Îranê, Xumênî devê xwe şewitand û got: "Gerek em hemû mîna (Mela Hesenî) pêşnimêjê Şîe yê Urmiyê bin". Mela hesenî jî hindî aqil, aqiltir bû û rabû rûyê "hêstir"ê sipî kir û wefadariya xwe li hember axaftina zirrr bavê xwe "Xumênî" de nîşan da, kurê xwe yê canik û cahêl bi îxanetkar binav kir û da destên mirovxaran, di encam de kurê wî hat îdamkirin. Wêca piştî 33 salan, benda "Nêçîrvano" ket bîra mela Hesenî: "Herê nêçîro nêçîrvano bavê te kore be her du çavano, şile be her du lingano, ma bavê te nezanî ku te kewlê rêvî xistibû ser milano", tepek çokê xwe da û got: Way jaro ezooo ez çi poşmanim ku min bi destên xwe kurê xwe da kuştin. Way tu têr emir nebî kurooooo, ma her te kerek nanî xwaribû, tu çûy rêdînê bitiraşî te simbêl jî danîn ser.

Diyare her Hesenî nine ku simbêl danîn ser rêdînê, niha jî hindek "dû bêhna kebaban ve diçin dibînin ku keran dax dikin".



**Berxwedaniya Feth li hemberî gef û herweha xwastekên Amerîka de, bûye sedema vê ku Amerîka bîr ji cezadana Fethê bike. Lewra ne tenê Amerîka budceya alîkariyên xwe ji Fethê qut kir, belkû pişt perde hewkariya Ordonê kiriye bo baştirkirina rewşa wî welatî di gel Hemasê**



# Deriyê Ordonê ji Hemasê re vekirî ye

**Ferehmend Elîpûr**
**W: Rûken**

Xalid Meşel rêberê tevgera Hemas çû Ordonê da ku bi paşayê wî welatî re hevdîtinê pêk bîne. Ew bûyera ku di rastî de wek bûyerek dîrokî hatiye binavkirin.

Ew hevdîtin di vî warî de giring e ku bo cara yekemîn li sêzde salên borî de ye ku di navbera tevgera Hemas û berpirsyarên fermî ên Ordonê de hevdîtinek bi vî awayî pêk tê, ku renge encamên giring li pey xwe re hebin.

Ebdullayê duyemîn paşayê Ordonê li sala 1999'an de, saziya Hemas bi hêceta destêwerdana di nava ewlehiya netewî, veguhastina çek û teqemeniyan ji Sûriye ve bo Ordonê, li jêr zextên DYA, û bi armanca bihêzkirina pêwendiyên di navbera xwe û Îsraîlê de, ew ji Ordonê der kirin.

Ji dema derkirina rêberên Hemasê û daxistina nivîsîngehên ser bi vê tevgerê li Ordonê û veguhastina Hemasê bo Dîmeşqê, Xalid Meşel tenê du caran karîbû îzna çûna bo Emanê wergire.

Xalid Meşel du salan berî niha bi navbeynkariya paşayê Erebistanê karîbû bona amadebûna li rê û resma biaxêsipartina bavê xwe de, îznê ji paşayê Ordonê bona çûna Ordonê wergire.

Sefera duyemîn ya Meşel bo Ordonê du mehan berî niha, ew jî li rewşek bi tewahî cuda, wek geşbûna agirê meşên li Sûriyê, û li jêr sîbera sernixûniya hikumeta Husnî Mubarek li Mîsrê de rû da.

Herçend ragehandinên Ordonê nesaxiya dayîka Xalid Meşel û herweha serdanek malbatî kiribûn hêceta vê hevdîtinê, lê di hemen wan rojan de ragehandinên Îsraîlî bi awayek din ew pirs şirove kirin.

Li ser bingeha ragehandinên Îsraîlî hewlek jib o veguhastina binkeya tevgera Hemas ji Dîmeşqê ve bo Ordonê heye. Ew şirove tevî axaftina serokwezîrê Ordonê yek digirt.

Serokwezîrê taze yê Ordonê her vê demê li axaftinekê de derkirina rêberên Hemasê ji Ordonê li sala 1999 bi eşkere wek şaşiyek siyasî û yasayî nav bir.

Îran wek meztirîn piştevanê Hemasê ji barkirina Hemasê bo Ordonê nikare kêfxweş be, lê bona vê ku hertim xwe mîhwera berxwedana li hemberî Îsraîlê li herêmê de bihesibîne, piştevaniya xwe ji Hemas û Hizbullahê wê her bidomîne.

Lê gelo çi eger dikarin li pişt vê biryarê veşartî bin, gelo paşayê Ordonê piştî 13 salan û bi yekcarî bûye piştevanê Meşel? Li Ordon û li koşka seltenetî de çi rû daye? Yan nermiyek li armancên Meşel û tevgera Hemas da tê dîtin?

Di vî warî de em dikarin qala çar bîr û rayan bikin:

**Bayê** Buhara Erebî

Welatên Mîsr û Ordon herçend ku bi Îsraîlê re lihevhatinên aştiyê wajo kirine, lê ew mijar qet bi vê wateyê nebûye ku bîrûraya giştî ya wan welatan ew qebûl kiribin.

Ereb wan aştiyan û lihevhatinan wek sazişkariya çavkanîgirtî ji zextên DYA û lawaziya karbidestên xwe dizanin.

Lewra hiloşîna yek ji wan du hikumetan -Husnî mubarek- hem bû sedema liv û hereketên zêdetir û û micidtir ên Felestîniyan bo hevahengiya zêdetir û pêngavhilgirtin li riya nehêştina dubendiya deshilata Felestînî, û hem jî derfetek pêk anîn da ku aliyê kêm tewaya aliyên Mîsrî, Mezhebî û Sekolar, bona serkevtina di warê rakêşana civak û dengê hemwelatiyan dest bi birne jêr pirsyarêye girêbesta aştiyê ya di navbera Mîsr û Îsraîlê bikin.

Mijarek ku bi başî nîşana dîtingeha şeqamên Ereb ji pêwendiya bi Îsraîlê re ye. Bûyera bi vî awayî li Ordonê de jî rû daye, bi taybetî piştî vê ku pêwendiya Enqere - Tilawîv li zivistanek bê sabiqe de asê ma. Lewra şahê Ordonê jî hereketek kir û bi eşkereyî ragehand ku qazancên netewî ên Ordonê servey parastina pêwendiya wan ya bi Îsraîlê re ye.

**Rewşa navxweyî ya Ordonê**

Ordon welatek e ku nifûsa wê zêdetir ji vê ku Ordonî be, Felestînî ye. Ew Felestîniyên ku di qonaxên cur bi cur ji şerê Ereb – Îsraîlê, li warê xwe derketine û rû li Ordonê kirine, ew niha %60 a nifûsa Ordonê pêk tînin.

Sê caran guhertina serokwezîr di heyamê salekê de nîşaneya nîgeraniya kûr ya deshilata Haşimî ye. Piştevaniya ji her du girupên Filistînî guhertinek siyasî ye ku paşayê Ordonê di wan rojan de hewcehî pê heye.

Xalek din ya girîng di vî warî de opozisyona Ordonê ye, ku zêdetir Îxwanolmoslimînî ne. vegeriyana Xalid Meşel bo Ordonê wek rêberê girûpeke naskirî ya Îxwanolmoslimîn peyamek e ji aliyê dewlet û hikumeta şah Ebdulla ve bi neyaran, ku biryara wan ji bo guhartinan tenê di axaftinê de nine, û bi kiryar e.

Cezakirina rikeberekê bi navê Feth

Rêkxirawa Feth rikeberê herî mezin ê Hemasê ye. Berpirsyarên Hemasê û bi taybetî Mehmud Ebas berî vê ku li Ramellahê bijîn, di Ordonê de dijiyan.

Bê guman dûrketina sêzde salan ya Ordon û Hemasê, ne tenê li encama zext û fişarên Amerîka û Îsraîlê de bûye, belkû bê guman bûye sedema kêfxweşiya bê qas ya Feth wek rikeberê Hemasê.

Hewlên berdewam ên Mehmûd Ebas û herweha tevgera Feth bona jêhelbirina rewşa Felestîniyan li NY, di wan mehên dawiyê de, û herwha endametiya Felestînê li UNSCO de, ji aliyê Amerîkayê ve, wek kiryarek xweser a Fetihê hatiye şirovekirin.

Berxwedaniya Feth li hemberî gef û herweha xwastekên Amerîka de, bûye sedema vê ku Amerîka bîr ji cezadana Fethê bike. Lewra ne tenê Amerîka budceya alîkariyên xwe ji Fethê qut kir, belkû pişt perde hewkariya Ordonê kiriye bo baştirkirina rewşa wî welatî di gel Hemasê. Amerîka hinek berjewendiyên din jî di vî warî de hene, û ew jî jê sitandina rewayiya zêdetir ji Sûriyê wek yek ji helqeyên herî giring ên xeta "Moqawimet"ê.

Bi raya Amerîka dûrketina Hemasê bona avakirina pêşeroja Sûriyê, berjewendiyek zêdetir heye û veguhastina vê bo welatek nêzîk û hevalbendê Amerîka hitbarek zêdetir heye, û Amerîka dikare ku Hemasê di destê xwe de bi awayê herî baş ragire.

Berjewendiya Hemasê û rolê Îranê

Nêzîkatiya zêdetir bi Felestîniyan, hesta serkevtin û rizgariya ji tawanbariyek sêzde salî, sepandina xwe û dane qebûlkirina xwe bi wan Erebên ku heya niha bi awayekê ew tevger ret dikirin, rûniştina li nawenda baldana welatên nermrew, dîtina mal û avahiyek êmintir û wergirtina alîkariyên zêdetir ji Îranê, li ciyê vê Sûriyeya ku di nav agir de asê bûye, dikare hinek ji sedemên biryargirtina vê tevgerê bin bona vegeryana bo Ordonê.

Bêguman Îran wek mezintirîn piştevanê Hemasê ji vê kiryara Hemasê nikare kêfxweş be, her çawan ku piştevanî nekirina Xalid Meşel ji rejîma Esed li Dîmeşqê de, bo hikumeta Îranê dilxweşker û ciyê qebulkirinê nebû. Îran li hember vê biryara Hemasê de nikare gellek jî pêdagiriyê bike, Jiber ku Îran ku xwe wek xeta berxwedanê li hember Îsraîlê de dizane, neçare ku berdewam piştevanê Hemas û Hizbullahê be.

Hejmar 176, 4'ê Şibat 2012

***Dîtingeha hizrî a Îraniyan ji dîrok û şonasa Îranî, nêrînek îhsasî û sînordar û hişk li hember diyarde û rûdawên dîrokî, mesebî û civakî ye ku tenê bi nemana rejîmê nayê guhertin.***



# Astengiyên demokrasiyê di Îranê de

**Beşa 1**



**Ebdulla Hicab**
**ab.hejab@gmail.com**

Di mijara demokrasiyê de çavaniya beşdariya xelkê di biryardanên siyasî û herweha çavaniya derbasbûn bo sîstemek demokratîk, ya ku dîtingehên cur bi cur û çarçoveyên van dîtingehan diyarî dike, tevî bawerî bi usûlên bingehîn ên demokrasî, nêrînên giştî li ser mijara huwiyeta netewî mafên bingehîn ên netewî, nawendxwazî li hemberî kombûna deshilatê di nawendê de, parvekirina desthilat û herweha rola girûp û komên derveyî bazneya desthilatê ne.

Çavaniya pênaseyên her yek ji mijarên baskirî, di careserî an jî aloztirbûna kirîza heyî û pêşerojê de, rolek girîng hene. pêka nêrîna han, astengiyên pêşberî me di warê demokrasî di Îrana nû de xuya dibe.

Pêkhateya siyasî a niha ya Îranê, bi hebûna desthilata bêkontrol a nawendên diyarîkirî ji aliyê hikûmetê ve û hebûna wilayeta Feqîh di serveyî desthilatê de ku rexneyan wernagre, îmkana reforman tuneye û pêşî ji gihîştina qonax bi qonaxa bo demokrasiyê hatiye girtin.

Yasaya bingehîn a paremayî û pirr ji ferq û cudahî, girêdayîbûna hêzên sêgane ên rejîmê bi weliyê Feqîh, destêwerdana nawendên întisabî di hemû warên siyasî, civakî, çandî û îdarî, desthilata bê sînor a nawendên mesebî, leşkerî û besîc çend mînak ji astengiyên din li ser riya guhertinên demokratîk di Îranê de ne.

Lê astengiyên xelkê Îranê tenê di çarçoveya pêkhateya siyasî û yasayî a rejîmê de nine. Dîtingeha hizrî a Îraniyan ji dîrok û huwiyeta Îranî, nêrînek îhsasî û sînordar û hişk li hember diyarde û rûdawên dîrokî, mesebî û civakî ku tenê bi guhertina rejîmê nayê guhertin û herweha nebûna pêşîneya demokrasiyê û tevlîhevbûna desthilata leşkerî bi aboriya welat jî çend mînakên din ji astengiyên gihîştin bi demokrasiyê di Îranê de ne.

Herweha fikriyeta tewawîxwaz û nawendgira li gel haşakirin ji huwiyeta netweyên dereveyî bazneya desthilatê û li pey vê yekê liberçavnegirtina mafên netewayetî jî çend sedemên din bo negihîştin bi demokrasiyê ne.

Heke çar aliyên pêvajoya pêşketina civakê wate asayişa civakî, asta xwendewarî, saxlemî û beşdariya xelk di siyasetê de weke bingehek bo asta ferq û cudahiyê ji bo neteweyên derveyî bazneya desthilatê diyarî bikin, li gor amar û serjimêriyên ku rejîm bixwe bilav kirine, herêmên Sîstan û Belûçistan, Kurdistan, Xûzistan û Turkmen Sehra di pileyên herî dawîn li çav herêmên din ên Îranê cih girtine.

Binemaya vê newekheviyê li dema desthilatdariya Pehlewiyan hatibû darêtin û bi avabûna rejîma Îranê rewşa han xirabtir bû. ev yek eşkeretirîn nîşaneya bêparbûnekê ye ku pêwendiyek rasterast li gel huwiyet û daxwazên siyasî ên xelkên wan herêman heye.

Raste ku pirsa eslî a Îraniyan di qonaxa demî a niha de, hebûna sîstema Welayet Feqîh e, lê pirsgirêka neteweyên derveyî bazneya desthilatdariyê, xincî hebûna sîstema Welayet Feqîh, siyaseta nawendî û sepandina huwiyetî ye. Bi giştî rîşala nakokî a neteweyên derveyî bazneya desthilatê li gel desthilatdarên Îranî, çi di dema berê û çi di qonaxa niha de her di vê mijarê de ye.

Lewma xebat bo demokratîzekirina Îranê bi bêy nîşandana rêçareyek siyasî a meqbûl bo careseriya meseleyên netewî di welat de, rêxweşkirin bo beşdariya neteweyên derveyî bazneya desthilatê bo beşdarîkirin di îdareya kar û barên herêmî û herweha pênasekirina dubare a huwiyeta Îranî, nikare xebatek serketî be.

## Mamosta Ebdulla bavê şehîd Bextiyar Velzî li herêma Urmiyê koça dawiyê kir

**Bavê şehîdekî riya rizgariyê bi navê mamosta Ebdulla Velzî li devera Urmiyê koça dawiyê kir.**

Mixabin roja 28'ê Çileya Paşîn a 2012'an, mamosta "Ebdulla Velzî", kesayetiyê nîştimanperwer û bavê şehîd "Bextiyar Velzî" seba nesaxiya penceşêrê li gundê "Dizê" ser bi herêma Mirgewera Urmiyê koça dawiyê kir. Mamosta Ebdulla Velzî kesayetiyek nîştimanperwer û endamek bihêz yê teşkîlata nehênî a PDK Îranê bû û zarokên xwe bi hesta nîştimanperwerî perwerde kirin, û kurekî navbirî bi navê "Bextiyar Velzî" şehîdê PDKÎ ye. Kurek din yê mamosta "Ebdulla" bi navê "Arif Velzî" di nava refên pêşmergeyên PDK Îranê de mijûlî xebatê ye.

PDK Îranê bi boneya koça dawî a mamosta "Ebdulla Velzî" sersaxiyê dide malbat, kes û kar, û herweha hevçeperên "Arif Velzî" û xwe li xema wan de beşdar dizane.





# Kirîzên siyasî û aborî ên rejîma Îranê



Dr. Rojan Aştab

rojabashtab@yahoo.com

Sala 1357'an tevgera cemaweriya neteweyên Îranê li dijî rejîma paşatiya Îranê gelek bilez çû pêş. Di hemen dem de jî xweşbaweriya şahê Îranê û nexweşiya wî jî ji sedemên hêvîdarbûna xelkê Îranê bi serkevtinê bûn. Ew şoreşa cemawerî di rastî de wek şoreşa here giring ya sedsala bîsetemîn hate hesibandin û di rastî de karî dîroka siyasî ya herêma Rojhilata Navîn guherînê bi ser de bîne.

Armanca xelkê û hêzên siyasî ên Îranê bi çep û mezhebî ve û heta gelên Îranê jî dabînkirina azadiya siyasî û medenî ji aliyekê ve û ji aliyek din ve dabînkirina mafê netewî, Kulturî, aborî û civakî a gelên Îranê bû.

Xumênî her piştî serkevtina şoreşa gelên Îranê dest bi qebzekirina deshilatê di destê xwe de kir û wek weliyê feqîh ê reha û mutleq berbû canê tewaya azadîxwazan û gelên Îranê, bitaybetî gelê Kurd. Di doma wan sî û du salên borî de kurdistan bûye nawenda mîlîtarîstî û girtîgehek mezin ji bo Kurdan. Sîsetemek dîktatorî û terorîstî bi ser Kurdistanê de zal e û di her wareke de zulm li Kurdan tê kirin. Niha êdî bêkarî, bikaranîna madên hişber giranî, û bi dehan kêşeyên din ên civakî xelkê Kurdistanê û heta Îranê bi giştî xistine rewşek pirr aloz de. Niha ku 32 sal bi ser şoreşê re derbas dibe, komek arîşeyên cur bi cur pêsîra vê rejîmê girtine û ew rejîma ne demokratîk û ne dadperwer hisabî xistine tengaviyê de. Aloziya pêwendiyên di navbera Îranê di gel cîhana derve bi taybetî YE bûye sedema jidestdana prestîja siyasî û abûriya Îranê bi awayekê ku di dîroka deshilatdariya rejîma Îranê de bê mînak bûye.

Dabezina nirxa diravê netewî a Îranê li astekê de ye ku tu welatek bi vê diravê kar nake û di tu welatekê de mînakek weha tunebûye ku di heyamê mehekê de ji %150, ew diravê wan dabezînê bi xwe ve bibîne. Herweha giraniya şevatê wate ya benzîn, neft, gaz û kehrebê (berq), jiyana xelkê gelek sext û dijvar kiriye. Vê yekê pişta bazerganên Îranî û xwediyê karxaneyên berhemîner şikandiye.

Niha du diyarokên sereke û giring li daşkana aboriya welat de rolê xwe dilîzin, yekemîn: sepandina gemaro û tehrîmên aborî ên welatên YE û DYA bi ser bankên Îranî, û bi ser şandina kalayan bo Îranê û berevajî. Ya duyem jî: bi hederdana serwet û samana welat ji aliyê hêza deshilatdar û gendel ya ser bi beyta rêberî û malbatên wan û fermanderên sipaha pasdaran. Wan fakteran rolê xwe ê nîgatîv hebûye li ser xirapiya rewşa jiyan û xizmetguzariya xelkê.

Di rastî de em dikarin bêjin ku şoreşa gelên Îranê û serkevtina vê şoreşê û avabûna Komara Îslamî û siyaseta tevdanîkariya vê rejîmê di nav welatên herêmê de weha kir û Îran bibe navenda bihêz kirina rêkxirawên Îslamî ên tundrew li Îraq, Pakistan, Lubnan, Felestîn, Efxanistan, Yemen û çend welatên din. Vê yekê jî weha kir ku Îran wek karakterek sereke ya herêma pirr ji kêşe ya cîhanê derbikeve. Niha Îran bi kiryar bûye gefek micid bo ser aştiya li cîhanê de. Di rastî de niha êdî Îranê bi kar û kiryarên xwe ên terorîstî asayişa cîhanê têk daye, ji aliyek din ve jî bi mehandina oranyomê û çêkirina çeka navikî û ceribandina çendîn muşekên durhavêj û balistîk bûye gef li ser ewlehiya cîhanî. Her lewra jî niha Komara Îslamiya Îranê nikare xwe bi tu yasayek navnetewî re biguncîne, û civatgeha navnetewî jî bi gellek kirîzan re berbirû kiriye ku rê ji geşekirinê girtiye û rewş bo hiloşîna xwe xweş kiriye.



## Rojev

***li Konseya Ewlekariyê de bê guman hewlên micid bo li ser kar vêdebirina Beşar Esed wê bênê dan, aliyê kêm bona pêşîgirtin ji dana nirxek girantir û rijyana xwînek zêdetir ji laşê kunkunkirî yê xelkê têhniyê azadiyê ê Sûriyê, ku ew yek her ji niha ve Beşar û hevalbendên wê nîgeran kiriye.***



# Berxwedan li Sûriyê her dirêjî heye



Şehab Xalidî

bahozzozan@yahoo.com

Piştî vê ku rejîma Îranê heyamek berî niha ragehand ku pênc endazyarên Îranî di Sûriyê de, ji aliyê kesên çekdar ve hatine revandin, çend rojan berî niha dîmenê pênc kesan di Yotubê de hate bilavkirin ku li gorî îtirafa yek ji wan bi navê Emîriyan ew li roja 24'ê Rezberê ji aliyê rejîma Îranê ve bona beşdarîkirina li tepeseriya xelkê nerazî bo wir hatiye şandin, ew piledarek hêzên çekdar ên rejîma Îranê ye, û berpirsê girûpek pispor ya pênc kesî ye.

Navbirî di doma îtirafên xwe de dibêje ku "Ez û girûpa xwe, em bi piştevaniya hêzên emnî û îtilaatî ên Sûriyê li tepeseriya xelkê Sûriyê û teqekirina ji jin û zarokên Sûriyeyî bi taybetî li bajarê Homsê de beşdar bûn". Her lewra jî basa vê yekê heye ku ew pênc kes her ew endazyarane bin ku rejîmê îdia dikir ku ji aliyê kesên çekdar ve hatine revandin.

Her piştî bilavbûna wan dîmenan li ragehandinên giştî de Şêvra Netewî a Sûriyê û Erteşa Azad ya Sûriyê daxwaz ji Xamineyî kirin ku ew jî piştî bilavbûna wan hemû belgeyan, êdî îtirafê bi şandina hêzên çekdar bo nav xaka Sûriyê bona kuştara xelkê Sûriyê bike û piştre jî wan hêzên xwe ên çekdar li wir de derxîne.

Di rastî de îtirafên wan bi nav endazyarên rejîma Îranê û herweha axavtinên Elî Ekber Wilayetî rawêjkarê Xamineyî li wî warî de ku Sûriye ji wan re xet û hêla sor e, û bezandina vê hêla sor bi armanca hiloşandina rejîma Beşar Esed wan nîgeran dike, û nayê qebûlkirin, di rastî de zêdetir ji her demekê selimand ku ew bona parastina deshilata Beşar Esed her çi ji destê wan hatiye kirine û niha pêde jî wê bona mana rejîma Beşar Esed çi ji destê wan bê, wê bikin.

Ji aliyek din ve piştî vê ku Yekîtiya Ereb nekarî pêşiya tepeseriya hovane ya xelkê nerazî ji aliyê rejîma Sûriyê ve bigre, daxwaz ji Beşar Esed kir ku deshilatê bide destê cihgirê yekem ê xwe, û posta serkomariyê jî bi cih bihêle. Lê ew pêşniyar berbirûyê helwesta herî tund ya rejîma Beşar Esed û heta Îranê jî hat.

Lewra ew pêşniyar ji aliyê Yekîtiya Ereb û çend welatên Ewrûpayî ve bo Konseya Ewlekariyê a Neteweyên Yekbûyî hatiye şandin, bona vê ku wek çavkaniyek navneteweyî helwestek hejî û berpirsane bi qazancê xelkê azdîxwaze Sûriye bigre, ku bê guman ji bilî rejîma Îranê û hindek jî alîgirên Beşar Esed nebe, her hemû mirovek azadîxwaz ku dilê wan ji bo azadî û mirovatiyê lê dide, her ew çavnihêrî ji Konseya Ewlekariyê ya NY hene.

Herçend li gorî zanyariyan li Konseya Ewlekariyê di destpêkê de, bas ji gelaleya Yekîtiya Ereb derbarê li ser kar vêdeçûna Beşar Esed hatiye kirin, lê di rastî de her eva ku ew dosyeya êdî li Konseya Ewlekariyê de qonax bi qonax wê behs û gengeşe li ser bê kirin, pirr giring e, jiber ku li wir eva Yekîtiya Ereb nine ku bi sedema hesta nasyonalîstî û netewexwaziya wan jî be, hewlên micid bo çareseriya vê dosyeyê nedin, lê li Konseya Ewlekariyê de bê guman hewlên micid bo li ser kar vêdebirina Beşar Esed wê bêtê dan, aliyê kêm bona pêşîgirtin ji dana nirxek girantir û rijyana xwînek zêdetir ji laşê kunkunkirî yê xelkê têhniyê azadiyê ê Sûriyê, ku ew yek her ji niha ve Beşar û hevalbendên wê nîgeran kiriye.

**Gulşîfte xwe rût nekir ku reklamên seksî bike, gulşîfte bi nîşaneya nerazîtî li hember rewşa çandî a Îranê xwe tazî kir.**



# Xwetazîkirin çima?!



**Sadiq Vehdanî**

**s.kawe1365@gmail.com**

Çend roj berî niha bû ku ekterek navdar ya Îranî xwe tazî kir û wêneya tazî a wê di govara "Fîgaro" de hate bilavkirin.

Gulşîfte Ferahanî ektera sînema û TV a Îranî ku niha di Amerîkayê dijî, pêrar seba lîstin di çend fîlmên Hallywoodî sefera Amerîkayê kiribû û bi lîstin li fîlmên weke "Komek Direw" û hevkarbûn li gel ekterên navdar ên cîhanê weke "Lionardo Dîkapriyo" û "Rasil Kiro Mark Stirang", nîşan da ekterek pispor e. Her ji wê demê de jî kete ber rexneyên herî tund ên karbidestên hikûmetî, û bi awayên cur bi cur hate tawanbarkirin.

Destêwerdana hikûmetê di hemû aliyên çandî û civakî a Îranê bûye sedem ku derfeta kar û xizmetê ji bo hunermend û têkoşerên rastîn ên Îranê di hundirê welat de nemîne û gellek ji wan neçar dibin Îranê bi cih bihêlin.

Bi taybet di warê sînema de di van heyamên borî de rejîmê zext û givaşek zaf xistiye ser sînemaker û ekteran. Yek ji kiryarên rejîmê daxistina "Xaniya Sînema" di Tehranê de bû.

"Xaniya Sînema" nawendek sînemayî bû ku di sala 1365'an a Rojî de hate avakirin. Nawenda han serbarê givaş û sansor û ... heya astek bi awayekî pisporane mijûlî pêşvebirina kar û barên sînemayî di Îranê de bû, lê dewleta Ehmedînijad bi binavkirina wê nawendê weke cihê fehşa û bi hêceta tunebûna îzna fermî bo karkirinê, gellek rehet dest bi daxistina wê nawendê kir.

Herweha rejîm bi destêwerdanên xwe di sînemaya Îranê, rewşek pêk aniye ku hunermendên pispor tu derfetek bo karkirin tunebin û yan divê welat bi cih bihêlin yan jî rûnên û karek xincî karê sînemayê bikin.

Di Îranê de bazneya kar bo sînemayê bi qasî bazneya fikriyeta Komara Îslamî teng bûye û her berhemek sînemayî ku di xizmeta fikriyeta rejîmê de nebe, tê qedexekirin.

Gulşîfte Ferahanî, keça ektera Îranî, kesek bû ku bi çendîn sal di wê seqayê de kar kir û helbet tûşî pirsgirêk û zehmetên zaf jî bû.

Piştî ev kiryara Gulşîfte, sînemakarek hikûmetî bi navê "Selehşûr" di nav hevpeyvînek li gel malpera "Recanews" de got ku "sînema û felsefeya sînema bi wateya dijayetî li gel çandê ye û min çavnihêriya kiryarên han ji ekterên Îranî hebû, jiber ku sînema mirovan berbi fehşayê dibe".

Di rastî de rejîm di her wareke de û di her meydanekê de nûnerên xwe hene ku weke speakerên wê rol bilîzin. Selehşûr jî berdevkê rejîm e û axaftinên wî bîr û boçûna deshilata rejîm di warê sînemayê de ye.

Wate rejîm bi giştî li gel sînema û çandê dijayetî heye û her çandek xincî çanda qirêj a xwe fehşa û fesad dizane. Di rastî de rejîm bîr û boçûnek berevaj ji wateya fesadê heye. fesada rastîn eva ye ku rejîm encam dide, wate pêşîgirtin ji pêşveçûna çand di welatê de.

Gulşîfte xwe rût nekir ku reklamên seksî bike, guşîfte bi nîşaneya nerazîtî li hember rewşa çandî a Îranê xwe tazî kir.

Gulşîfte xwe tazî kir ku bêje mirov azad e û rejîm divê vê yekê fêm bike ku nikare heta li ser laşa mirovan de jî zal be.

Gulşîfte bi vê kiryara xwe got ku ekterên Îranî ev pitansiyele hene ku serbest bijîn û li hember fikriyeta nemirovane û berteng a rejîmê de bisekinin.

# Gelo jinên Îranî di hilbijartinê de wê beşdar bin?

**Xedîce Muqedem**
**W: Agirî**

Heke em mêzeyî berhemên heşt dewrên parlemana rejîma Îranê bikin, derdikeve ku bi hebûna çalakiyên jinan ji destpêka şoreşa gelên Îranê di sala 1379'an heya niha tu yek ji daxwazên bingehîn ên jinan di vê parlemanê de nehatiye liberçavgirtin û nûnerên jin ên parlemanê jî ku hejmara wan gellek kêm bûne, yan desthilatek tunebûne ku bikarin yasayên pirr ji ferq û cudahî û dijî jiniyê ji nav destûrên rejîmê rakin yan jî nêrîna hinek ji wan bo pêkanîna rewşek baştir bo jinan nehatiye û liberçavgirtin.

Mixabin di Îranê de her çiqas ku asta hişyariya jinên Îranî zêdetir bû û li dîv vê yekê daxwazên wan bo liberçavgirtina wekhaviyê di nav yasayan de pitir bû, tebyîz û newekhevî jî li gor van taybaetmendiyan zêdetir bûye. Herweha her çiqas hewl û xebatên jinan bo gihiştin bi wekhevî û azadî di asta civakê zêdetir bû, tirsa hikûmetê ji jinan jî pitir bûye. Di vê rewşê de hikûmet gardek asinîn li hember daxwazên jinan çê kiriye û hêvî ji bo cî bi cîbûna daxwazên wan kêmtir bûye.

Nifûsek zaf ji jinên xwendewar di Îranê de bûye sedema tirsa rejîmê û rejîm bo kontrola çalakiyên jinan dest bi kiryarên weke birêvebirina terhê cudakirina cinsî û herêmîkirina zankoyan û herweha guhertinên dijî jinan di yasayên kar de kir, bi awayek ku rejîm hez dike jin tenê di nav malan de bin.

Pitansiyêl û şiyana parleman ji bo cî bi cîkirina daxwazên jina li çi astekê de ye?

Parleman rejîmê di rewşa herî dilxweşker de dîsan jî nikare karek bingehîn bo jinan bike, bi hebûna destûra bingehîn a paremayiya rejîmê û herweha hebûna "Şêwra Nigehban" û di dawî de Welî Feqîh, tu terhek ku bi qazanca jin di parlemana rejîmê de bê pesendkirin, di encam de nayên birêvebirin. Jiber ku piraniya terhên ku bi qazanca rewşa jinan bin, li dijî nêrîna Welî Feqîh û destûra bingehîn a rejîmê ne.

Bo mînak hewldan bo guhertina madeyên 946 û 947 li destûra bingehîn de ji aliyê çalakên jin di nav û derveyî parlemanê ve ku bas ji mîrat wergirtinê dike û madeyên bi tewawî dijî jin e, serkevtî nebû û di encam de Welî Feqîh pêşî ji guhertina yasaya han girt.

Di warê hilbijartin û rewşa gerra nehem a parlemana rejîmê, çend pirsiyarên girîng dikevine ber bas. Yekem ev e ku hilbijartinek ku bi destbiserkirina hejmarek zaf ji rojnamevanên jin û mêr dest pê kiriye, gelo dê çi naverokek hebe? Gelo ev hilbijartin dikare bala jinên hişyar ên Îranê bo aliyê xwe rakêşe? Xelkek ku piştî hilbijartina gerra dehem a serkomariyê di sala 1388'an de û bi sedema nerazîtî nîşandana xwe li hember encama hilbijartinê hatine tepeserkirin, niha jî dixwazin ku di hilbijartina parlemanê beşdarî bikin?

Hilbijartina gerra nehem a parlemantoya rejîmê nêzîkî 8'ê March, roja cîhaniya Jin e, û jinên Îranî bi taybet jinên ciwan xwaziyarê azadî û wekheviyê ne. Lewra di çarçoveya vê rejîmê de ku nikarin mafê xwe bi dest bixin, zehmet e ku riya beşdariyê ji xwe re hilbijêrin.



***Seyîd Ezîz Nîkcûyan:***

# *“Min jêva bû şehîdê mezin Dr. Qasimlo tenê ji siyaset û dîplomasî û pirsên weh dizane, lê dema ku me oparesyonek pêk anî, wî daxwaza fîlma wî şerî kir û me fîlm bir cem wî, û wî jî li vê fîlmê nihêrî û li wir de çendîn şaşiyên ku me di şer kiribûn, destnîşan kirin, ku eva tiştek bû ez heyirîmayî kirim, bi taybetî ez ji gotinên wî, hînî exlaq di şerê çekdarî de bûm”.*

**Hevpeyvîn: Kewê zer**


Feyze Rohanî

**Feyze Rohanî pêşmergeyê kevnar yê PDK Îranê li sala 1951'an li gundê "Kaşter" yê ser bi bajarê Kamyaranê ji dayîk bûye û li sala 1980'an tevlî refên pêşmergeyên PDK Îranê bûye.**

Navbirî ji duheftînameya Agirî re wuha bas ji xebata xwe di PDK Îranê de kir:

Di serdemê rejîma Şah de ku ez zarok bûm, min hest dikir ku zulmek li ser me heye, ew zulm ji aliyê axayan ku li devera Kamyaranê dibêjinê "Malik"an ve li ser me dihat meşandin. Min hertim hizir dikir ku em çawa li wê zulmê derbas bibin, çimku min rojane didît ku çawa wan malikan zulim li bavê min dikir.

Wî serdemî ku li deverên Kurdistanê bi taybetî di gundan de xwendegeh nebûn û em nexwendewar bûn, û tu rêyek li pêş çavên me bo derbasbûn ji zulmê nexuya bû, heya ku ez gihîştim temenê nûciwanî û ciwaniyê, ku hevdem bû tevî şoreşa gelên Îranê, û hêdî hêdî min hest bi vê dikir ku zulma han di rastî de ya rejîma paşayetiyê ku em di nezaniyê de ragirtine û mil dane milê malikan û mafên me binpê dikin.

Komara Îslamî hat ser kar û ez û çend hevalên xwe em bûn çekdar, çimku me zulma dewleta şa dîtibû û wê demê jî zanyarî her ewqas bûn ku me digot ev rejîme nemîne çi dibe bila bibe, lewma em bûn çekdar û em çûne nav binkeyeke leşkerî a Komara Îslamî ya Îranê de. Di rastî de jî heya sala 1979'an PDK Îranê bi vî awayî li devera Başûrê Kurdistana Îranê de nehatibû naskirin û min bixwe ew nas nedikir.

Piştî derbasbûna salekê, me navê PDK Îranê guh lêdibû û ji me re dihat gotin ku hêzek pêşmerge heye û tev rejîma Komara Îslamî şerr dike û zanyariyan dide ku ew rejîme ji rejîma berê xirabtir e. Em kunckol bûn û di riya hevalekê ve me PDK Îranê nas kir û di dema salekê de PDK Îranê li devera me de bi başî xwe da naskirin, li sala 1980'an ez bi fermî tevlî refên pêşmergeyên PDK Îranê bûm, piştî wê pêla teblîxî û baskirina siyasetên partiyê ji aliyê kadrên partiyê ve bo xelkê, êdî PDK Îranê di devera Kamyaranê de cihê xwe vekir, hêza Bêstûn pêkanî û partiya me bû mezintirîn hêza parêzerê gelê Kurd.

Di xebata xwe de min jî weke her pêşmergeyek din bi taybetî di dewrana xebata çekdarî de gellik qerqeşe dîtine. Girîngtirîn ji wan, dema bidawîbûna şerrê Îran û Îraqê bû ku em ketin nava her du hêzên rejîma Îran û rejîma Beis de li devera Deretife li Helebceyê û bajarê Helebceyê hat girtin û pasdaran em dorpêç kirin. Sê şev û rojan em nava bax û giyayan de man, lê baş bû ku werza biharê bû û giyayê terr hebû me giya dixwar û birsiyatiya xwe dişkand.

Wan sê rojan de peyamên Dr. Qasimlo ji me re dihatin ku em çawa xwe derbas bikin, bi her awayekê bû me xwe kir cilên pêşmergeyên Yekîtiya Nîştimanî a Kurdistanê de û wê demê jî Yekîtî li sînor û di nav axa Îranê de bû û rejîma Îranê ew dihebandin, em di nava pasdarên Îranê de bi şeklê pêşmergeyên Yekîtiya Nîştimanî a Kurdistanê de derbasî devera Seydsadiq bûn û me xwe gîjannd binkeyên PDK Îranê.

Ewa îmana me bi wê partiyê bû ku em tucar bêçare nediman, ev îman jî ji meznatiya PDK Îranê ve çavkanî digirt.

Partiya me bihêze û morala me pê bilintir dibe, û îmana me roj bi roj bihêztir e, di vê navberê de bi îmana bihêz em pêtr kar dikin, evaye ku Partiya Demokrat pêlên xwe avêtine herderên Kurdistanê.

32 sal e ez di vê partiyê de me û roja ku ez hatî bo nava partiyê, hestên min tev îro tu ferqek nekirine û nehatine guhertin û her wa bihêz in û ez nawestiyêm.

Ger carek din ez ciwan bibim, dê dîsan her wî karî bikim. Ger PDK Îranê û tu partiyek din jî li Kurdistana Îranê nemîne, ezê herim Kurdistana Sûriyê û Turkiyê dirêjî bi xebata xwe a netewî bidim.

Hêviya min ev e ku ez rojekê bi azadî herim Kurdistana Îranê û zarokê wan şehîdên ku li kêleka min canê xwe ji dest dane maç bikim. Ger bi çavê xwe jî nebînim ne pirsgirêke, piştî nemana min jî partiya min dê wê rojê bike para gelê min.

**Seyd Ezîz Nîkcûyan xebatkarek kevnar yê PDK Îranê li sala 1961'an li devera Mengurayetî a bajarê Mehabadê ji dayîk bûye û di temenê ciwaniyê de tevlî refên PDK Îranê bûye, û heyamê pêtir ji 30 salan e ku di kar û xebata xwe di PDK Îranê de berdewam e.**

Navbirî ji duheftînameya Agirî re bi vî awayî axavî:

Dema ku rejîma Şah ez bo serbaziyê (leşkeriyê) girtim, bo heyamê 6 mehan ez li serbaziyê bûm û di vê demê de bû ku şoreşa gelên Îranê li dijî rejîma Paşayetî serî hilda û ez û çend hevalên xwe li serbaziyê reviyan û me xwe gihande bajarê Mehabadê.

Piştî serkevtina şoreşê, PDK Îranê xebata aşkira a xwe di bajarên Kurdistanê de destpê kir û bajarê Mehabadê jî wek dayîkekê hertim xebatkarên PDK Îranê hembêz kirine, ez li wê demê de bûm hogir û elaqedarş pêşmergatiyê û li sala 1981'an ez bi awayek fermî hatim nava refên pêşmergeyên PDK Îranê de û min xebata xwe di vê partiyê de destpê kir.

Di xebatek dûr û dirêj a pêtir ji 30 Sali de de min gellek ewraz û nişîv dîtine û ew tirajîdyayên ku bi ser pêşmerge de hatine min di xebata xwe de pirranî ezmûn kirine.

Wê demê ku PDK Îranê xebatek çekdarî dimeşand, ez di refên hêza Pêşewa a Mehabadê de cihgîr bûm.


Seyd Ezîz Nîkcûyan

Bi ezmûnwergirtin ji xebatkar û berpirsên partiyê min karî di xebata xwe de serkevtinên mezin ji partiya xwe re bidest bixim û di heman dem de ku min ezmûn werdigirt, min ew ezmûn dikirin wane ji bo heval û xelkên din ku ji siyaset û xebata partiya Demokrat têbigîjin.

Micidbûna min di kar û xebatê de wa kir ku ez pile bi pile di karê partiyê de serbikevim û min ji organên biçûk de berpirsayetî wergirt û qonax bi qonax ji aliyê partiyê ve berpirsayetî bi min hatine dayîn heya gihîştim asta "Fermandeyê Hêz" û di heyamê xebata çekdarî de jî min fermandehêzî di zaf hêzên Partiya Demokrat de bi taybetî di hêzên Pêşewa a Mehabadê û Hêza Sipîseng ku pêhatibû ji komîteyên Pîranşar û Nexede û herweha fermandehiya hêza Samrend ezmûn kirine, û piştî rawestana xebata çekdarî jî min fermandehiya hêza Parêzgarî kiriye, û piştre di organên Emniyet û Xedematê de berpirsayetî hebûye, û niha jî li Navenda 2 a PDK Îranê de ez şêvirmendê vê navedê me.

Di xebata çekdarî de min ezmûnek mezin wergirt, bi taybetî di şerran de ku birîndar berî vê ku canê xwe ji dest bidin û şehîd bibin, axaftinên wan ku bi rastî ji kûrahiya dil ve dihatin der, îmana min çend qat dikirin. Di hemen hal de ji aliyek din ve jî bi hebûna fermandeyên jêhatî di qonaxa xebata çekdarî de, û destnîşankirina şaşiyan di şerran de ez hînî pirr karên mezin kirim.

Bi taybetî ku min jêva bû şehîdê mezin Dr. Qasimlo tenê ji siyaset û dîplomasî û pirsên weh dizane, lê dema ku me oparesyonek pêk anî, wî daxwaza fîlma wî şerî kir û me fîlm bir cem wî, û wî jî li vê fîlmê nihêrî û li wir de çendîn şaşiyên ku me di şer kiribûn, destnîşan kirin, ku eva tiştek bû ez heyirîmayî kirim, bi taybetî ez ji gotinên wî, hînî exlaq di şerê çekdarî de bûm.

Ezmûn wergirtin ji mirovê wuha, bêguman dê encamek baş hebe û me ji serkevtina di vê riyê de piştrast dike. Lewma dema ku dengê Dr. Qasimlo tê guhê min, ez bi hurmet ve radiwestim heya axaftinên wî bidawî tên.

Ew partiye ku pêşrewê xelkê Kurd li Kurdistana Îranê bûye û niha jî her wa pêşrew e, dê bi pêşewayiya wê partiyê netewa me li Rojhilartê Kurdistanê rizgar bibe, lewma ez di partiyê de mame û dimînim jî. Awayên xebatê jî rewş diyarî dike û em divêt xwe tevî hemû awayên xebatê hevaheng bikin û li gor zirûf û guhertinan bimeşin, emê serkevin.

***seba cihgirtina bajarê Bazirganê li cem bilindtirîn çiyayê çar perçê kurdistanê, wate çiyayê Agirî, dîmenekî zaf rindik daye bajar û her kes li seranserî welat serdana wî bajarî dikin û zaf kes bajarê Bazirganê bi bajarê efsaneyî bi nav dikin.***


Bazirgan

# Bajarê bazirgan



**Mecîd Cinîkanlû**

**Maku_agiri@yahoo.com**

Bazirgan yak ji bajarê harî girîng yên parêzgeha Urmiyê li rojhilatê Kurdistanê de ye . Ew bajar ketiye herêma navendî a şaristana Makûyê de.

Bajarê Bazirganê li bakura rojavaya Îranê û rojhilatê Kurdistanê de cih girtiye. Bazirgan li nêrîna coxrafî û abûrî ve xwediyê giringiyekî xasmanî ye. Ew bajar ji alîyê bakûr ve tevî Turkiyê û ji aliyê bakûrê rojhilat ve tevî herêma otonom a Nexcewanê hevsînor e, û girîngtirîn gûmrika erdî ya Îranê tê hesibandin ku tevî Ewropa dibe hevsînor û rojane bi sedan gerîdeyên biyanî li vî dervazeyê sînorî re hatûçûyînê dikin, û bi sedan kamîyûnên barhilgir li wî sînorî dahatekî zaf bo Îranê bi dest dixin.

"Ujilê filandil"ê Feransewî yek ji wan kesan e ku li serdemê Elîxan(serdarê Makûyê ) di sefernameya xwe de bas ji wî bajarî dike û navê wî Bazirgan nivîsandîye.

Derheq navê Bazirganê û pêka çavkaniyên dîrokî sedema binavkirina wî bajarî bi vî navî, zêdetir li ber cihgirtina wî bajarî li sînorê du welatan de bûye, û her pêka hin çavkanîyan ev bajar bi Bazirgan xanê (mala bazirganan) jî hatiye bi nav kirin. Li herêma Bazirganê zaf şûnwarên dîrokî hene ku dîroka hin ji wan bo pêş Zayînê vedigere ku ji şûnwarên herî girîng, ew menzilên çêkirî ji kevir li nêzîk gundê Senger a wî bajarî ne.

Li herêma derdora Bazirganê zaf cihên xweş av û hewa, hene ku dîmenekî bê qas ciwan dane wî bajêrî, û xelkê herêmê ji bo derbazkirina çend demjimêran jî be, serdana wan cihan dikin, û bi dûr ji hemû kêşe û arîşeyên jiyanê, heyamekî xweş li wan cihan de bi ser dibin. Seyrangeha bûlaxlar yek ji wan cihên xweş e ku xelkê herêmê rojane û bi taybetî li heyamê Buharê de, zaf serdan dikin.

Herwisa seba cihgirtina bajarê Bazirganê li cem bilindtirîn çiyayê çar perçê kurdistanê, wate çiyayê Agirî, dîmenekî zaf rindik daye bajar û Kurd û Îranî li seranserî welat serdana wî bajarî dikin û zaf kes bajarê Bazirganê bi bajarê efsaneyî bi nav dikin.

Çîyayê Agirî li cem hemû Kurdan û bitaybetî Kurdên herêma Makûyê xwediyê pîroziyekî taybetî ye û ew çiya serdemekê tenê dost û hevalê Kurdên bakûr û rojhilatê Kurdistanê bûye, ku li ber zulim û dagîrkeriya rejîmên Îran û Turkiyê dest bi şoreşê kirine, û li wî çıyayê pîroz yekem car alaya Kurdistanê li serdemê Komara Agirî ji alıyê Êhsan Nûrî paşa û hevalên wî vce hatıye hildan. Her piştî têkçûna serhildana Agirîyê bû ku hejmarekî zaf ji Kurdên herêma Makû û Bazirganê bo alıyê Xelaxal û paşan jî bo Qezwînê hatin koçber kirin.

Bazirgan hetanî sala 1365'an a Rojî li rêya bajêrwaniya Makûyê ve dihat îdarekirin, lê li ber giringiya taybetî ya sînorî û avedaniya baş li herêmê de , li sala 1375'an a Rojî de, bi awayekî resmî dest bi karê xwe kir. Nifûsa wî bajêrî li sala 1385'an a Rojî 9047 kes bûye.

Piranîya xelkê bajêr Kurd û li eşîrên Calalî pêk tê, û li nav bajar de jî piranîya dokan û bazaran di destê Kurdan de ye. Zarawê xelkê kurd ê Bazirganê Kurmancî ye, û xelkê wir peyrewê ola îslamê ne. Li herêmê de hin Azerî jî jîyanê dikin ku piraniya wan ji zimanê Kurdî tê digîjin.

Li herêma Makûyê bi giştî û bi taybetî li derdora bajarê Bazirganê hin malbatên Ermenî jî jiyanê dikin ku bi salane li wê herêmê cih û war bûne, û tevî Kurdan xizmayetî ji hene.

Li derdora bajarê Bazirganê zaf gundên Kurda hene ku ji bo dabînkirina hewcehîyên jiyana xwe serdana bajar dikin.

Li nava bajêr de seba siyaseta dewleta Îranê piraniya karbidestên îdareyî yên ser bi dewletê li dest Azeriyan de ye. Rejîma Îranê li herêmê Bazirganê her wek hemû bajarên rojhilatê Kurdistanê îzana tu çalakiyên siyasî, civakî û hwd, nade kurdan û Kurd li herêmê de bi tundî tên tepeser kirin.

Dersxwanên Kurd ji bo ku bikarin karekê ji bo peydakirina pariyekî nan peyda bikin, bi neçarî rû li bajarên din ên parêzgha Urmiyê û Îranê dikin. Li bajarê Tehran û Qezwînê bi dehan hizar kes ji xelkê herêma Makûyê niha jiyanê bi ser dibin ku seba siyasetên qirêj yên dewleta Îranê aware bûne.

Ji aliyeke din ve rejîm bi awayekî sistmatîk madeyên bêhişker li nav ciwanên Kurd li herêmê de bilav dike û li herêma Makûyê de zaf ji xelkê herêmê gîrodeyî wan madeyan bûne.

Bi xweşî ve li çend salan berî niha ve heta îro seba xebata hin pizişkên welatperwer yên Kurd, pêşîya gîrodebûna zêdetir ya xelkê bi wan madeyan hatiye girtin, lê rejîma Îranê bi zexta xwe dixwaze pêş bi karê wan kesan bigire û ji bo wan kesan astengiyan çê dike.



*Ehmedînijad di civîna navnetewî ya " Ciwan û Hişyariya Îslamî" de:*

***"Reh û rîşeya tewaya arîşeyên xelkê herêmê hebûna rejîma Sehyunîstî û îstikbaran e, sedsalî berî niha hindek kesan şaşî kirin, Rojawayî bona zalbûna bi ser herêmê de hatne herêma me de, lê hindeka şaşî kirin û hewkariya wan kirin û bûne sedema deshilatdariya sed sale ya wan bi ser herêma me de".***



*ELÎ Ekber Wilayetî rawêjkarê Elî Xamineyî:*

***" Li Sûriyê û Amerîkayê de Amerîka û Îsraîl ji hêzên çekdar ên Sûriyê piştevaniyê dikin".***




Teymûr Mistefayî

Birêz Teymûr Mistefayî çalakê siyasî, axavtina Ehmedînijad weha şirove dike: "Pêkhatina kêşe û aloziyan di herêmê de, ne bi sedema destêwerdanên bi gotina Ehmedînijad rejîma Sehyunîstî, belku bi sedema wan hemû destêwerdanên rejîma Îranê di nava karûbarên welatên herêmê de ji riya piştevanîkirina ji taqm û girupên terorîstî ye. Herweha hewildana Îranê bona bidestxistina çeka navikî jî sedemek din ya pêkhatina ne ewlehiyê di herêmê de ye. Her seba vê yekê ye jî ku hinek ji welatên herêmê ji tirsê rejîma Îranê dest bi kirîna çek û teqemeniyan ji welatên rojavayî kirine. Wate ew diravê ku divê ji bo ewlehî û pêkanîna jiyanek xweş ji xelkê re bê xerckirin, di vê riyê de tê mezaxtin. Lewra çavkaniya kêşe û aloziyan di herêmê de bê guman rejîma Îranê ye".

Birêz Teymûr Mistefayî axavtina Wilayetî jî bi vî awayî şirove kir:

"Raste ku Amerîka piştevaniya siyasî ji opozisyona Sûriyê li dijî dîktatoriya Beşar Esed dike, lê rejîma îranê jî bi şandina çek û teqemeniyan bo rejîma Sûriyê û beşdariya Sipaha Quds di tepeseriya xelkê azadîxwaz ê wî welatî, û herweha bi diyarîkirina budceyek taybet û propagendeyek berfireh ji dîktatoriya Beşar Esed re piştevaniya vê rejîmê dike.

Di rastî de hem civaka navnetewî têra xwe belge di vî warî de hen, hem jî Îranê bixwe bi awayên cur bi cur ew rastiya raxistiye ber çavê bîr û raya giştî".

***************

*Nûnerê baska Ehrar ya ser bi Rewta Sedir Cewad El-Şehêlî:*

***"Di rewşa niha ya Îraqê de kurd serketiyê yekê bûne, û Kurdan maf hene ku berevaniyê ji destketên xwe bikin, lê pêwîste li ser hesaba berjewendiyên geştî yên Iraqê nebe.***

***Her di dema jinavçûna rejîma berê ve, kurd xwe bi beşek ji arîşeyên Îraqê nizanin û her dema ku hikûmeta navendî lawaz bûye, hewla dameziradina dewleta kurdî dane".***





Kavûs Ezîzî

Birêz Kavûs Ezîzî, çavdêrê siyasî, dîtingeha rewta Sedr ji Agirî re weha şirove kir:

"Rewta sedir bo hemû aliyekê zelal e ku bêtir siyasetên komara Îslamî ya îranê ber çav digre, û dîtingehên wan bilav dike.

Ev rewta niha jî xewnê bi dewletekî bihêze îslamî ya Şîe ve dibîne û baweriya wan bi demokrasî û mafên mirov, azadiyên tak, civak û neteweyan nine û her damezirîn û hatne meydana wan jî bi mebesta nehêlane wan bîrokeyane bûye. Ew bo dewleta Îraqê modêla Îranê dixwazin û bes.

Lê Kurd di vî warî de mixabin yek helwêst û xwdî pirojeyek giştgîr nînin. Part û rêkxirawên Kurd li başûrê Kurdistanê heya niha jî pirojeya duyemîn neanîne nav basên xwe de.

Lê rewta Sedir û hewbîrên wan çende dijî mafên Kurdan jî bin, ne balkêş e, jiber ku ew di destê xwe de nînin.

Tu aliyekî Îraqî jî bi qasî Kurdan berjewendiyên Îraqê neparastine û

***************

*Erdoxan derbarê axavtina Serokê Giştî yê BDP'ê Selahedîn Demîrtaş de ku ji Erdoxan re gotibû "derkeve û bêje min fermana kuştinê daye, yan jî bêje min nedaye, di komcivîna partiya xwe de gellek hişk û tund axivî:*

***"Ev îdîakirin di nava xwe de, cahiltî, bê ezmûnî, û xeyidbûn heye. Ji van xirabtir di nava vê îdîakirin û tawanbariyê de siyaseta bê exlaqî heye." Erdoxan di vê axavtina xwe de piştgîrî jî da hêzên ewlekarî û leşkerî, û di hemen dem de, tu sozek derbarê lêkolînên bûyera Roboskiyê neda malbatên wan.***



**Şiroveya Kavûs Ezîzî li ser axavtina Erdoxan jî weha bû:**

"Eva ku Erdoxan basê exlaq dike, pir balkêş e! Gelo kîjan exlaq? Ev exlaqê ku Erdogxan û partiya wî û kabîneya wî bawerî pê nînin?

Eger exlaq li cem Erdoxan ew be ku li hember komkujî û cenayetên esker û polîsên Turk de gelê Kurd çavê xwe bigre, û di şer de ew çekên qedexekirî bi kar bînin, termê kuştiyan bişevitînin, her roj goreke bi kom li deverekî Turkiyê derkeve holê, di hember xelkê ku li Erdhejê de mal û halê xwe ji dest dane, dewleta Erdoxan hewara wan de neçe, divêt em û hemû xelkê cîhanê pîrozbahiyê bêjne Erdoxan bo wan exlaqên ku ew pênase dike!!.

Lê eva ku eyan e mixabin Kurd li Turkiyê hertim bûye qurbaniyê şer û rikeberiya di navbera dezgehên eskerî û emnî yên vî welatî li gel hikûmetê, û Erdoxan bo destveanîna bala dezgehên emnî û leşkerî, dikeve dijminkariyê bi Kurdan re.

Bes Erdoxan û hevhizrên wî di bingeh de bawerî bi hebûna Kurd nînin û ew axavtinên ku tînne ziman jî, tenê jêsteke di hember dewletên demokratîk ên Ewropayî de".

# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye
Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

www.kurdistanmedia.com/kurdi
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE
E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com






Gundê Enbê, Urmiye

**Sersaxî**

**Desteya nivîskaran ya duheftenameya Agirî seba koça dawiyê ya mamosta Ebdulla Velzî, sersaxiyê dibêje birêz Arif Velzî, kurê navbirî û endamê desteya nivîskaran ya vê duheftenameyê û xwe di xema Arif û malbata wî de beşdar dizane.**

**Riha wî sad be**

## Rejîma Îranê zanayekî xwe ê etomî bi sala ye ku veşartiye




**Rojnameya Lomonda a Feransî di raporekê de bal kişandiye ser jiyana zanayekî Etomî ê Îranê, bi navê Muhsin Fikrîzade ku heyamê 10 sala ye bi awayek veşartî ji aliyê rejîma Îranê ve tê parastin**

Di vê raporê de hatiye ku navbirî serperestiya bernameya etomiya Îranê ya naskirî bi 111'ê dike , lewra giringiyek zaf bo Îranê heye û yek ji wan kesan e ku Îsraîl dixwaze teror bike, û her seba vê yekê ye ku heya niha tu wêne û navnîşanên wî nehatine bilavkirin.

Lomond dibêje ku navbrî bi pileya serdar di Pîşesaziya Leşkerî ya Sipahê de kar dike û heya niha tu lêgerekî ajansê navbirî nedîtiye.

## wêneyekî balkêş ji Obama




Li Amerîka, "National Prayer Breakfast" heye, serokê Amerîka wê taşteyê dide, roja 02.02.2012 ew taşte ji aliyê serokê Amerîka Barack Obama ve hate dayîn.

Obama, berî ku dest bi taştê bike, maçek weke diyarî ji seroka Kongresa Amerîka Nancy **Pelosi** stand.

Avesta

## Husnî Mobarek mafê penaberiyê wergirt, lê nexwast welatê xwe biterikîne



**Sozan Mubarek hevjîna Husnî Mobarek di pirtûka bîreweriyên xwe de ku bi wan zukatiya wê were bilav kirin, nivîsandiye ku Husnî Mobarek û malbata wî, 11 meh berî niha mafê penaberiya Amerîkayê bi wan hatibû dan, lê wan nexwast ku welatê xwe biterikînin.**

Navbrî herweha got ku welatên Erebistan, Kuwêt, Îmarat û Behrîn jî mafê penaberiya siyasî dane wan, lê seba vê yekê ku dizanîn renge şoreşgêr û deshilatdarên Misrî bi kerb û kîn ve bi wan re reftar bikin, biryar dan ku li Mîsrê de bimînin.

Sozanê herweha got ku di 11'ê Şibata sala 2011'an, dema ku dixwestin ji Qahirê ber bi Şermulşêxê ve biçin, belgenameyên penaberiya wan ji wan hatine sitandin.

Hêjayî gotinê ye ku navbrî bi awayeke fermî hemû sermaye û heyiya xwe di hember dadgehî nekirina Husnî Mobarek de rijandin hisaba hikûmetê de.

